# Nerîna Lîderan



Mistefa Hicrî:

"Mafê tu welatekî nine ku di hemberî îradeya gelên Îranê de bisekine".



John Kerry

"Têrçekkirina pêşmerge ji riya hikûmeta Îraqê ve ne kêşe ye".



Baxçelî:

"Pêpkên Kurdistana Rojava têne avakirin".



Moqteda Sedr:

"Em li dijî têrçekkirina Kurd, Şî'e û Suniyan in".

## Rojhilat şerê birakujiyê ji PKK qebûl nake

**Hewar Baziyan**

Hertim hinek nîgeranî di hindurê her Kurdekî Rojhilatî de hebûye ku nebe ev siyasetên PKK'ê bo Başûr û Rojava li Rojhilata Kurdistanê jî bêne ducarîkirin. Hevdem Kurd di Rojhilata Kurdistanê de ku para dawî ye, hêj negehiştiye azadî û rizgariyê, û hertim sozek bo gerîlayan hebûye ku peyama rizgariya netewî hilgirtiye, lê bûyerên çend rojên derbazbûyî û şer û pevçûnên PKK'ê û hêzeke PDKÎ li ser sînorên Rojhilat û Başûr ku kuştî û birîndar lê ketin, mijûl e ku zirarê digehîne vê boçûnê, û nîgeraniyeke rewa hemû Kurdan bitaybetî li Rojhilata Kurdistanê digire.

**1-Nîgeraniya herî mezin**

Ev bûyera han ji aliyê PDKÎ ve tiştekî çaverêkirî bû, û ji mêjve bû ku PDKÎ li ser vê baweriyê bû ku PKK dev ji destêverdana di nava karûbarên parçeyên din berdaye, lê eva ku balkêş e cur û dema rûdawê ye. PDKÎ ku bo cara yekemîn e ku bi eşkere dikeve ber taqîkariyeke siyasetên PKK li Rojhilata Kurdistanê, amade nabe ku di hemeberî xwastekên vê hêzê de serî bitewîne, ku daxwazê dike Hêzên Demokrat herêmên Kêleşîn, Seqer û Xinêrê wala bikin.

PDKÎ li ser vê baweriyê ye ku, hekî niha li derheq herêmên Rojhilata Kurdistanê helwêstek tund tunebe, renge di pêşerojê de gellek zehmet û dijvar be ku bikare xwe ji destên pawanxwaziyên PKK derbaz bike, lewma tê çavnihêrîkirin ku Partiya Demokrat di hemberî vê bûyerê de ku bi awayekî fermî di daxuyaniyekê de wekî şerfiroşiya PKK bi nav kiriye, helwêsteke tund hebe. Ya cihê nîgeraniyê ev e ku PKK jî li ser vê baweriyê ye ku dibe her niha bêje hêzên Rojhilata Kurdisatnê ku "Kurdistanê sînor tunînin, û em hemû cihekî bi qada xebata xwe dizanin".

Hekî ev cudahiya mezin niha jî agirê şer xweş neke, bê guman wê berdewam sîberê bixe ser aliyê siyasî yê Kurd di Rojhilat de.

**2-Gumana yekdestbûna PKK'e û Komara Îslamî tê kirin**

Vegeriyana pêşmergên Demokrat bo navxwe ya Rojhilata Kurdistanê rasterast piştî aloziyên Mihabadê (Piştî can jidestdana keçekê li encama hewlên destdirêjiya karmendek ewlehiyê) bû ku çavnihêrî dihat kirin ku hêzên Rojhilat û bitaybetî demokrat, di çend çalakiyan de helwêsta wan hebe.

Komara Îslamî ya Îranê di navxwe de heya niha jî mijûlî girtina xelkê û çavedêrîkirina çalakiyên wan û her cure liv û tevgereke wan e. Hevdem îsal Komara Îslamî pitir ji her demekê mijûlî kêşeyên navxweyî û derekî ye, her ji têkiliyên bi şerê DAÎŞ li Îraqê re bigre heya digihîje Hûsiyan li Yemenê, rewşa Sûriyê û pirograma navkikî ku dîsan ber bi bêencamiyê ve diçe. Lewra PDKÎ ji zimanê cihgirê sekreterê giştî yê partiya xwe ve naveşêre ku "ji me re eşkere bûye ku curek hevahengî di navbera PKK'e û Spaha Pasdaran de heye", da ku di herêmê de astengiyan bixin ser rêya çalakiyên pêşmerge, û hevdem bas ji belavkirina hêzên Spaha Pasdaran di heman herêmê de tê kirin. Ev gotin û boçûnên han nabe asayî û bêkêşe bêne şirovekirin.

**3-Hêzên Rojhilat yekdeng in**

Tewahiya partî û aliyên siyasî û sereke ên Rojhilata Kurdistanê ji vê nîgeraniya PDKÎ têdigîjin, û ew jî hest bi metirsiya zêdexwaziya PKK'ê li Rojhilata Kurdistanê dikin. Her hemû jî çi çep, çi Îslamî û çi jî Îlmanî, PKK'ê bi tundî rexne dikin. PKK'ê "Partiya Çareseriya Demokratîk" bo Başûr û "Partiya Yekîtiya Demokratîk" bo Rojava heye, û bo Rojhilata Kurdistanê jî "Civaka Demokratîk û Azad a Rojhilat (Kodar)" heye, ku her hema PJAK bû, û weke nûnerê PKK'ê di Rojhilat de kar dikir. Lewra Rojhilatî ji vê yekê nîgeran in ku îro PKK xwe bisepîne bi ser Kurdan di Rojhilata Kurdistanê de.



## Kerry: Êdî sebra civaka navdewletî ji Esed re nemaye

**Wezîrê Karê Derve yê Amerîkayê, "John Kerry" ragihand ku, wî ligel rayedarên Rûsyayê pirsa bikaranîna çekên kîmyawî ji aliyê rêjîma Sûriyê ve gotûbêj kiriye.**

"John Kerry" herwiha diyar kir ku, sebra civaka navdewletî li ser kiryarên ku Serokê Sûriyê Beşar Esed dike, êdî namîne.

John Kerry di daxuyaniyekê de ragihand, ew piştrast e Hikûmeta Sûriyê li hember piraniya êrîşên ku bi çekên kîmyawî di şerê navxwe yê wî welatî de çêbûne, berpirsyar e.

Kerry bal kişand ku wî pirsa bikaranîna çekên kîmyawî li Sûriyeyê bi rêya telefonê ligel Wezîrê Derve yê Rûsya, "Sergey Lavrov" gotûbêj kiriye.

erry herwiha got, Lavrov dê behsa vê mijarê ligel Serokê Sûriyeyê Beşar Esed bike.

Wezîrê Derve yê Amerîkayê diyar kir, ku bombeyên kîmyawî yên li Sûriyê hatine bikaranîn, ji balafiran hatine avêtin.

Kerry herwiha got, dibe ku hin komên çekdar ên dijberê Sûriyeyê di qonaxekê de çekên kîmyawî bidest xistibin, lê balafir yan jî helîkopter di destê wan de tine ne.

Çavkanî: Rûdaw

**Saniye Şabazî: Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê malbata me ya mezin e û em hemû li dewra hevdu kom kirine, û niha jî me tu çavnihêriyek ji partiya xwe nîne, jiber ku niha jî di halê şoreşê de ye".**

**H: Arif Vêlzî**

Evîna şoreş û xebatê rastiyek e ku piraniya gelê Kurd ji dil ve hest pê dikin û vê evîndariyê dikin. Evîna welat û serbestiyê bi qasekî şirîn û ji dil ve ye, ku mirovên şoreşvan, serbarê vê ku ji malbat û xweştevî û xweşiyên jiyanê dûr dikevin û di awareyî û taliyê de rojê dikin şev, û şevê dikin roj, lê bi giştî li ser vê baweriyê ne ku gelê Kurd bi tewahî xûşk û birayên hev in, û eva PDKÎ ye ku me hemûyan li her der û bajarekî weke malbatekê li dora hevdu kom dike, da ku hemû bi hev re û yekdeng di pêxema gehiştin bi hêvî û armancên netewa xwe de xebatê bimeşînin.



Birêz Saniye Şabazî jî yek ji wan jinên niştimanperwer e ku, serbarê dûrî ji xizm û kes û kar û dê û bavê xwe, her takeke Kurd li Kurdistana Rojhilat de, bi xûşk û birayê xwe dizane, û PDKÎ jî bi malbata xwe ya sereke dizane û li ser vê baweriyê ye ku xebata netewî a Kurdistana Rojhilat gereke di bin siya PDKÎ de, bona gihîştin bi serkevtina yekcarî, bê meşandin.

Saniye Şabazî keça Hesen, sala 1958'an (02.10.1347) li gundê "Dalanî" a ser bi bajarê Dîwanderê hatiye dinê. Saniye Şabazî derheq bi nasyariya xwe û tevlîbûna xwe bi refên pêşmergên PDKÎ re weha dibêje: "Her di despêka şoreşa gelên Îranê de û heya hinek berî wî çaxî jî, malbata min tevî şoreş û berxwedana Kurdan bi rêberiya PDKÎ nasyar bibû, jiber ku mamekî min û herweha kurmamekî min di refên PDKÎ de bûn, û mixabin piştî heyamekê tevlî karwanê şehîdan bûn, û canê xwe pêşkêşî baregehên azadiya Kurdistanê kirin. Lewra şehîdbûna mam û kurmam û herweha hesta min a nîştîmanperwerî û şoreşvanî bandor xist ser min, û min soz da ku ez weke pêşmerge tevlî PDKÎ bibim, û di sala 1983'an (1362) de, min soza xwe bi cih anî û ez bûme pêşmerge. Piştî salekê pêşmergatiyê min û kurmamê xwe yê pêşmerge bi navê Ehmed Şabazî biryara pêkanîna jiyana hevpar da û em bi hev re zewicîn, û berhema jiyana me jî 3 keç bi navên Sergol û Rûnak û Rojîn û herweha 2 kur bi navên Şoreş û Şêrko ne".

Saniye Şabazî piştî derbazkirina pitirî 30 sal ji temenê xwe di nava refên pêşmergên PDKÎ de, çavnihêriyên xwe ji PDKÎ û herweha hevjinê xwe yê pêşmerge weha tîne ziman: "Rast e ku jiyana pêşmergatiyê tijî ye ji zehmetî, lê xincî dûriya ji ezîz û malbat û herweha awarebûn û zehmetî û taliyên jiyana pêşmergatiyê, Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê malbata me ya mezin e û em hemû li dewrê hevdu kom kirine, û niha jî me tu çavnihêriyek ji partiya xwe nîne, jiber ku niha jî di halê şoreşê de ye, dijmin xedar e û xebata li dijî wê pir giran e, lê di pêşerojê de hekî em vegeriyan Rojhilata azad û serbest, wî çaxî me çavnihêriya gellek tiştan heye ji partiya xwe. Niha çavnihêriya min ji hevjînê min jî ev e ku bi dil û can erkên xwe ên pêşmergatiyê bi cih bîne, û hêviya min serkevtina wî ye".



Saniye Şabazî roja herî xweş a jiyama xwe weha tîne ziman: "Piştî salekê pêşmergatî û pêkanîna jiyana hevpar, bi sedema hindek hokaran min nekarî ku ez pêşmergatiya xwe bidomînim û neçar mam ku heya 2 salan vegerim Îranê, lê piştre cardin ez vegeriyam û min karî ku tevî hevjînê xwe em malekê ava bikin, û ji nû ve jiyana xwe bidomînin, eva roja herî xweş a jiyana min e".

Saniye Şabazî herweha di hember de roja herî nexweş a jiyana xwe weha tîne ziman: "13.07.1989'an bû, mala me li gundê "Cawkan"ê bû, me mêhvan hebûn û em mijûlî çêkirina tendûra nançêkirinê bûn ku nûçeya şehîdkirina Dr. Qasimlo bo me hat, em hemû heyirîn, pir nexweş bû, û hemû xelk li ber deriyê binkeya partiya xwe kom bibûn û digiriyan, eva roja herî nexweş a jiyana min e, û tu caran ez nikarim wê rojê ji bîr bikim".

Saniye Şabazî rû li keçên Kurdistana Rojhilat dike, û bi vê peyamê dawiyê bi hevpeyvîna xwe tîne: "Daxwaza min ji keçên Kurdistana Rojhilat ev e ku tevlî şoreş û refên PDKÎ bin, û hekî kesek jî nekare ku tevlî refên partiyê bibe, dikare bi awayên cur bi cur xizmetê bi niştimana xwe bike, bo mînak piştevaniya rêkxirawên cur bi cur ên ser bi PDKÎ bike".



## RMMK: “Daliqandina çalakvanên Kurd, kiryareke nemirovî ye”.

**Kurdistan Media: Saziya Berevankar a ji mafên mirovan ya Kurdistanê di daxûyaniyekê de, birêvebirina hukmê îdama Mensûr Arwend, girtiyê siyasî ê Kurd bi karekî nemrovane da zanîn.**

Li gor rapora malpera Kurdistan Media, roja sêşemiyê 15’ê Hezîrana 2015’an, rêxisitina Berevankar a Mafên mirovan ya Kurdistanê li hember birêvebirina hukmê lidarvekirina Mensûr Arwend, girtiyê siyasî ê Kurd yê xelkê bajarê Mehabadê daxûyaniyek belav kir.

Saziya Berevankar ji mafên mirov a Kurdistanê(RMMK) di daxûyaniyekê de, sedema birêvebirina hukmê îdama vî girtiyê siyasî ê Kurd di vê zurûfê de, ji bo afirandin û pêkanîna tirs û xof û nîgeraniyê li nav çalakvanên siyasî û sivîl yên Kurdistanê de vegerand.




Saziya Mafê Mirov ya Kurdistanê, xembariya xwe derheq birêvebirina hukmê nedadperwerane û nemirovane ya çalakvanên siaysî û sivîl di Kurdistana Îranê de nîşan da û daxwaza dawîanîn bi van cure lidarvekirinan li Kurdistanê û pabendbûna rejîma Îslamî a Îranê bi yasayên navnetewî û herweha kerameta mirov kir.

Di dawiya daxûyaniyê de hatiye: “Rêxistina parêzerê mafên mirov ya Kurdistanê hişyariyê dide rejîma Îslamî ya Îranê û tekez li ser wê yekê dike ku li berçavnegirtina pîvanên mafên mirovî yên pesendkirî di carnameya NY bo kêmaniyên netewî û ayînî weke mafê diyarîkrina çarenivîsê (Otonomî), xurtbûna tund û tûjiyê li Îranê û guhertina rewşa vî welatî bo welatekî din wekî Sûriye û Îraq li pey re tê”.

Berbanga sibê ya roja yekşemî, 24’ê Hezîrana 2015’an, hukmê îdamkirina Mensûr Arwend, girtiyê siyasî yê Kurd li girtîgeha Miyanduavê de birêve çû.

Mensûr Arwend, Hezîrana 2011’an li mala xwe di Mehabadê de hatibû binçavkirin û paşan ji aliyê çiqa yekem ya dadgeha Şoreşa bajarê Mehabadê, bi tometa “muharibe” ji rêya alîkarîkirin bi Partiyek Kurd ê dijberê rejîma Îranê” cezaya îdamê bi ser de hatibû sepandin.

## Îlam di warê rêjeya tawanan de, li pêşiya Tehranê ye!

**Li gorî amarên fermî yên Îranê, eyaleta Îlamê ya Rojhilata Kurdistanê ku biçûktirîn eyaleta Îran û Rojhilata Kurdistanê ye, di warê sûç û tawanan de di rêza yekem de ye. Parêzerekî kurd jî dibêje, sedema bingehîn a vê yekê, piştguhxistina Îlamê ji aliyê dewletê ve ye.**

Serokê navenda amarê ya dadweriya giştî ya Îranê, Hemîd Şehriyarî ragihandiye, par li eyaleta Îlamê ya Rojhilata Kurdistanê 8 hezar û 200 dosya û dozên sûç û tawanan hatine tomarkirin.

Şehriyarî her wiha gotiye, bi vê yekê Îlam di warê sûc û tawanan de li pêşiya Tehranê jî ketiye, çimkî par li Tehranê ku zêdetirî 13 milyon kes tê de dijîn, 6 hezar û 109 dosya û dozên sûçê hatine tomarkirin.

Parêzerê kurd Salih Nîkbext li ser vê yekê ji Rûdawê re got, helbet ew amarên ku hikûmetê ragihandiye, mirov nikare zêde pê bawer bike çimkî gellek dosya û doz bi navbeynkariya mezin û rihspiyan tên çareserkirin.

Salih Nîkbext li ser sedema zêdebûna sûc û tawanên civakî li Îlamê jî got, sedema bingehîn a zêdebûna wan sûc û arîşeyan, piştguhxistina Îlamê ji aliyê hikûmetê ve û pêkhateya eşîrî ya wê deverê ye.



Li gorî wî parêzerê kurd, eşîrtî li pêşiya geşekirina Îlamê asteng e, ji ber ku di koka piraniya arîşe û tawanên civakî de çanda eşîrtiyê heye.

Îlam li başûra Rojhilata Kurdistanê ye, û di warê nifûsê de biçûktirîn eyaleta Îran û Rojhilata Kurdistanê ye. Rêjeya bêkarî û xwekuştinê li Îlamê pir zêde ye. **Çavkan: Rûdaw**

## Bi hatina Remezanê re nan bûye çîroka rojevê

**Remezan hat û xelkê Sûriyê û Rojavaya Kurdistanê bi zehmetî pêdviyên jiyana xwe peyda dikin.**

Serokê Komeleya Parastina Welatî (Mustehlik) di Hikûmeta Sûriyê de, Ednan Dexaxnî ragihand ku pêwîstiya her malbateke Sûrî bi 2500 lîreyan heye, ji bo peydakirina xwarinê di her rojekê de.

Ev yek di demekê de dibe ku welatiyên Sûrî bi zorê nan bi dest wan dikeve. Herwiha ew nan jî gellekî xirab e. **Çavkanî: Rûdaw**



## Pirtûka “Qasimlû, manîfestoya sîmaya mirovane ya rêberiyê” çap û belav bû




**Kurdistan Media: Pirtûka “Qasimlo, manîfestoya sîmaya mirovane ya rêberiyê” ji nivîsîna “Mecîd Heqî” nivîskar û çalakvanê siyasî ê kurd û rûniştiyê Finlandê li Kurdistanê de hat çap û belavkirin.**

Li gor rapora malpera Kurdistan Media, roja yekşemî, 14’ê Hezîrana 2015an, pirtûka “Qasimlo, manîfestoya sîmaya mirovane ya rêberiyê”ji nivîsîna Mecîd Heqî ê nivîskar û çalakê siyasî ê kurd ve hate çap û belav kirin.

“Qasimlo, manîfestoya sîmaya mirovane ya rêberiyê” li çarçoveya pirtûkek 130 rûpelî de hatiye çapkirin ku 25 nivîs û gotarên nivîskar bi boneya 25mîn salvegera terorkirina Dr. Qasimlo û hevalên wî li xwe de cih daye.

Li pêşgotina nivîskar de hatiye ku li vê pirtûkê de, xalên herî girîng ên têkildarî huner û metoda rêberiya Dr. Qasimlo bi mifahstandin ji dawîn teoriyên zanistî ên rêberiyê hatine bas kirin.

Mecîd Heqî, nivîskar û çalakê siyasî ê kurd li bersiva pirsiyara malpera Kurdistan Media li ser armanc û merema wî ji nivîsîna vê pirtûkê de weha got: “Li ser kesatiya Dr. Qasimlo li biyavên curbicur de gelek hatiye gotin û nivîsandin, lê bi kêmî awir ji rola Dr.Qasimlo li geşandina rêberî û metoda rêxistin û birêveberiyê li nav tevgera kurd de hatiye dayîn. Wekî nîşandana emegnasiya xwe bi rêbaza Qasimlo û herweha bi armanca ronîkirina mijarên herî girîng ên rojeva bizava neteweyî, wate pirsa rêberiyê, min biryar da ku vê pirtûkê pêşkeşî bargeha rêvîngên Dr. Qasimlo bikim”.

> Birêz Mecîd Heqî:
>
> **Dr. Qasimlo wekî rêberekê, him vîzyon û aso ji bo hizbê û xelkê afirand, him jî hewil da rêberiya bi kom li nav Partiya Demokrat de bike bi çand û ferheng**

Malpera Kurdistan Media li doma gotûbêja bi Mecîd Heqî, nivîskarê pirtûka “Qasimlo, manîfestoya sîmaya mirovane ya rêberiyê”de, pirsiyarek lid or rola Dr. Qasimlo li geşekirina rêberî û sedemên awirdana kêm ya ji rola wî rêberê kurd re xiste ber bas û navhatî jî weha bersivand: “Yek ji pirsên herî girîng ên bizava neteweyî, pirsa rêberî û perwerdeya rêber e. Mixabin heya niha jî li piraniya hêzên kurdî de, rêberî li ser bingeha sunetên kevnar û pergala mêrsalariyê de birêve diçe û guh bi vê yekê nahê dayîn ku rêberî, him zaniest e û him jî metod û şêwaza piratîkî û herweha biyava herî bibandor e jî li pêşdebirina armancên siyasî û rêxistinî de”.

Mecîd Heqî weha domand: Li vê dîtingehê ve ger em mêzeyî 20 salên derbasbûyî yên rêberî û birêveberiyê bikin, em kêmtirîn guhertinên mêtodîk li sîstema birêveberiya hizbê û diyarîkirina stratejiyê li nav partiyên kurdî de tê dîtin. Dr. Qasimlo wekî rêberekê, him vîzyon û aso ji bo hizbê û xelkê afirand, him jî hewil da rêberiya bikom li nav Hizba Demokrat de bike bi çand û ferheng. Ji aliyekî din ve jî ji riya avakirina komîsyonên cur bi cur li nav hizbê de û avakirina zankoyê li nav hizbê de, dixwast jêhatîgerî “şayiste salarî” û perwerdeya rêberiyê li nav hizbê de nehadîne û cihgîr bike”.

Nivîskarê pirtûka “Qasimlo, manîfestoya sîmaya mirovane ya rêberiyê” li dawiyê de bas ji vê dike ku cuda ji wê ku Qasimlo di ew heyama ku sekreterê giştî yê Hizba demokrat de bû, sal bo sale û kongire li pey kongireyê jî nûgeriya siyasî û kûrtir kirina çanda demokrasiyê û disîplîna rêxistinî derbasî nav hizbê dikir. Lewre Hizba demokrat li serdema Qasimlo de, bi wateya rastîn ya peyvê, pêşeng û pêşrewê xelkê Kurdistanê û rêberê tevgera netewî ya kurd li Kurdistanê de bû”.

---

## Gotinên Navdaran



**A: Firat Ceweri**

Mirov carinan dixwaze ku hemû mirovan bi dar ve bike û dawiya vê komediyê bîne.

**Mark Twain**

Ger bawerî winda bibe û şeref bimire, mirov jî diçe.

**Whittier**

Mirov gurê hev in.

**T. Hobbes**

Nasîna hemû mirovan bi carekê, ji nasîna mirovan ya yek bi yek hêsantir e.

**La Rochefoucauld**

Mirov, pîvana her tiştî ye.

**Protagoras**

Ger tu zanibe bixwînî, tu dê bibînî ku her mirovek pirtûkek e.

**W. E. Channing**

Mirov tiştê ku herî hindik pê dizane, herî pir baweriya xwe pê tîne.

**Montaigne**

# Zimanê Kurdî



**Beşa 12.** Dema xwendinê

## Alîkariya bilez

**Pembû ji bo paqijkirina birînê ye.**
**Meqes ji bo jêkirina çapûtê pêçanê ye.**
**Tendirdiyot ji bo pêçana birînê ye.**
**Banda birînê ji bo sergirtina birînê ye.**
**Banda pêçanê ji bo girêdana çapûtê pêçanê ye.**



**Di çenteya alîkariya bilez de pembû, tendirdiyot, meqes, banda birînê, banda pêçanê û çapûtên pêçanê hene.**









**..................................... ji bo kuştina mîkroban e,**
**..................................... ji bo pêçana birînê ye.**
**..................................... ji bo girêdana çapût pêçanê ye.**
**..................................... ji bo paqijkirina birînê ye.**
**..................................... ji bo jêkirina çapûtê pêçanê ye.**
**..................................... ji bo sergirtina birînê ye.**

# Tiştonek



**A: Mahir Berwarî**

1- Şîrî didet bê guhan.
- Tiştekê min tiştane, şîrî didet bê guhan e.

2- Gayê dadikim, kuriyê/dûv jê dikim.
- Çume şikeftekê, lê dinêrim sed pezêt tê, heryekê bi şaxekê.
- Bab şirîn e, korr şirîn e, nevî dîn e. (* mêw-tirî-mey)
- Dayka şîn e, kiça şirîn e, kiça kiçê ya har û dîn e.

3- Dara jînê, didet gulêt zêrînê.

4- Ji serve surî, ji binve xumarî.

5- Ji serve Reş, ji bin ve sipî.
- Kumê dirêj, tije qirêj.

6- Kiça mela, bi hizar kirasa.

7- Yê bi sê linga, yarê jinka.
- Sê bira bi şaşkekê.
- Lawkê deştanî, bi sê piya xwe digirit, bi 2 piya dikevit.

8- Ji serve hosan e, ji binve Qoran e.
- Qurana li binê dinê, hindî şêx û mela hatinê, neşyan bidene xandinê, dihête xarinê.
- Çûme şarê şik tê nîne, min guşt xar hêsk tê nîne.

9- Binê axîn e, navtenga şîn e, serê zêrrîn e.
- Ser zêrînê, bin axînê.
-Binî şîn e, nîvî sax e, serî zêr e.

10- Tiştê min tişte ne bere ne pişt e, hema bi xwe bi xwe tişt e.

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja!**
**Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**



# Agirî

**Rojnameya "Agirî" di van malperên jêrên de bixwînin:**
- www.Kurdistanmedia.com
- www.Agirimedia.org
-rojnamaagiri@gmail.com
-www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (256)


## Hokarên bêhna ne xweş a dev û didanên mirovan di dema Remezanê de bi vî awayî ne:

1-Kirmîbûna didan(xilorbûn)

2-Bicîmana paşmayiya xwarina di navbera didanan de, û paqijnekirina wan

3-Îfûneta pûyên didanên mirov

4-Geşekirina baktiriyên cur bi cur di nava dev û didanan de

5-Hişikbûna dev û kêmbûna rêjeya ava di dev de

Di hember de jî bi van rêyan dikarî rêgir bî ji çêbûna bêhna ne xweş a dev û didanan:

1-Vexwarina berdewam ya avê piştî fitarê heya sibê û dema paşîvê, jiber ku dibe sedema zêdebûna ava devê mirovan

2-Fîqî û pincarên zêde bixwen, jiber ku bêhna devê mirovan xweş dikin, û vîtamînên hewce didin leşê mirov

3-Xwarina sîr û pîvazê kêm bikin, jiber ku bi şuştina dev û didanan jî bêhna dev baş nabe

4-Bi temamî destan ji cigerê bikişîne

5-Piştî xwarina êvarê çaya kesk bixwe, û herweha tevî xwarinê me'denûs û kerewizê bixwe.

6-Didanên xwe bi paqijî bişo, û berî razanê jî bi têla taybet a didanan navbeyna didana paqij bike.



## Kelûpelên mala xwe kirin du beş






**Piştî 12 salan jiyanek hevpar di malekê de keçek Almanî dest ji hevjîna xwe dikêşe, û hevdem daxwazê jê dike ku nîviya kelûpelên navmalê jê re bişîne.**

Di hember de jî hevjînê keçikê tewahiya kelûpelên navmala xwe ji nîviyê de dike du parçe, û ji her yekê ji wan parçeyekî ji hevjîna xwe re dişîne.

## Vîktoriya bi awayekî ecêb hate cezakirin



**Keça 18 salî a Amerîkî bi navê Vîktoriya bi sedema vê ku kirêya teksiyê nedaye, ji aliyê dadgehe herêma "Ohayo" ya Amerîkayê ve, bi awayekî ecêb hate cezakirin.**

Piştî ku Vîktoriya heyamê 48 demjimêran bi teksiyê ji bajarê Kilîflandê çûye bajarê Bayinsfêl û piştî peyabûnê, kirêya teksiyê nedaye, ji aliyê şofêrê teksiyê ve gilîname li ser hatiye tomarkirin.

Di bersiva gilînameya wî de, dadwerê dadgehê cezayê 48 demjimêr rêçûyîna bi piyan, sê rojan karkirina belaş bo xizmeta civakê, dana 100 Dolar xerame bo kompaniya teksiyê, û çavedêriya bo heyama 4 heyvan bi ser de sepand.

Dadwer Maykil yek ji wan dadweran e ku bi diyarîkirina cezayên ecêb bo wan kesan ku bo cara yekemîn yasayan binpê dikin, û herweha ewên ku ji binpêkirina yasayê poşmaniya xwe nîşan didin, hatiye naskirin. Dadwer Maykil herweha ragehand ku %90 ji wan kesan ku min weha ceza dane, cardin yasa binpê nekirine.

## Rêveberê cîbicîkar yê Twîterê dest ji kar dikişîne

**Dîk Kostolo rêveberê cîbicîkar yê kompaniya Twîterê, dest ji kar kêşana xwe ragehand û piştre bi awayekî demkî hevalê wî yê hevhevkarê kompaniya navbirî bi navê Cak Dorsî, di cihê wî de rûnişt. Lê Kostolo hevdem weke endamê civata rêveberan di cihê xwe de dimîne.**

Kostolo di nameya dest ji kar kêşana xwe de ragehandiye ku: "Şanaziyê bi tîma Twîterê û hemû deskewtên wê dikim, ku di heyama wan 6 salan de, û di serdema rêveberiya min de hatine bidestxistin".

Her piştî ragehandina dest ji kar kêşana Kostolo, ku di yekê heyva dahatî de dikeve qonaxa cîbicîkirinê de, pişkên Twîterê bi rêjeya %8 ber bi zêdebûnê ve çûn.

